

## Baydemir: Helwesta Tirkiyê tall û bijehr e

»»»» R:7





*Bidestveanîna mafên netewî yên gelê kurd di çarçoveya Îraneke demokratîk û federal de*

# Agirî

*Duheftînameyek Siayasî-Giştî Ye, PDK Îranê diweşîne www.kurdistanmedia.com/kurdî*
*www.agirimedia.org Hejmar (304) 21-06-2017 Buha (1000) Tûmen*

## PDKÎ: Biryara serxwebûnê, biryareke dîrokî û girîng e

»»»» R:2



## Nûçegihaniya Mêhr avakirina dewleta Kurdistanê wekî dewleta DAÎŞ'ê bi nav kir

»»»» R:5

# Rejîma Îranê, ne qurbaniyê terorê ye



**Êrîşa roja Çarşemiyê 17`ê Cozerdanê li ser meclisa rejîma Îranê, bi kuştin û birîndarbûna 54 kesan bi dawî hat.**

Beşek ji çavdêrên siyasî vê bûyerê wekî pevçûna terorîzma Komara Îslamî û Spaha Pasdran digel selefiya cîhadî û DAÎŞ`ê pênase dikin. Ew girûpane ji aliyê seranên Cemaranê ve hatine piştgirîkirin, û di derbazbûyî de girûpên tundajo ên Îslamî di Kurdistanê de bi agehdarî û bi berçavê dezgehên Îstixbaratî ên rejîma Îranê geşe kirine, û heta ji aliyê dezgehên rejîmê ve rê bo wan hatiye xweşkirin, ku geşe bikin û ciwanên Kurd ji rê derxînin, û wan bibin Efxanistan û Îraq û Sûriyê û …hwd û di wir de xwe biteqînin.

Xala cihê jêhûrbûnê ew e ku wekî deba hertimî ya rejîmê, gellek ji aliyên siyasî û çalakên siyasî û çalakên biyavê mafên mirovan hişdarî dabûn, ku Komara Îslamî ku peşkê agirê tundajotiyê ber ketiye, hewl dide ku vê pirsê bike hêcetek bo reşgîriyê û jinavbirina neyarên xwe, bi taybetî çalakên medenî, mesebî,

»»»» R:4

## Tirsa ji teqteqokan

»»»» R:2



## Pêşmerge û stratejiya rasana Rojhilat

»»»» R:5



## Leyîza bi teqteqokan, hêceta hikûmeta wehşetê

»»»» R:8



## Sergotar

### Tirsa ji teqteqokan

**Kerîm Perwîzî**



Spaha Pasdaran a rejîma Îranê roja Sêşemiyê 30`ê Cozerdanê ragehand ku Erebistanê kesên ser bi Spaha Pasdaran destbiser nekirine. Roja Duşemiyê jî ragehand ku şeva pêştir çend mûşek nav Dêrelzorê dane, û bi qewlê wan bi xwe, wan êrîşî ser binkeya terorîstan kiriye li Sûriye.

Erebistanê roja Duşemiyê ragehand ku çend gemiyên Spaha Pasdaran nêzî sekoya petrolê ya Mercan li kendavê bûne, ku ew yek ya Erebistên ye, û piştre wan jî gulle bi ser wan gemiyan de reşandine, û çend pasdar destbiser kirine, û du gemiyên din jî reviyane!.

Nûçegihaniyên navneteweyî jî roja Duşemiyê ragehandin ku êrîşa mûşekî hatiye kirin bo ser opozisyona Sûrî li Dêrelzorê, û riya êrîşa bejahî ji hêzên Beşar Esed re vekirî ye.

Ew bûyer hevdem in digel hingavtina balafireke Sûrî ji aliyê hêzên Amerîkayê ve, û di wê demê de jî, Rûsiyê gef xwarine ku di navçeya şer di Sûriyê de, rêkevtina hêla pêwendiya taybetî digel Amerîkayê ragirtiye.

Guherîna nizamî û emniyetî li ser erd û di qada şer di navçeya Rojhilata Navîn de, bilez rû didin, û bûrkana şer, agirê wê zêdetir geş dibe.

Ger ser hemda xwe, tu ji bileziya bûyeran kêm bikî, û bi awayekî aramtir li wan wêneyan binêrî ku bilez derbaz dibin, hinek ratsiyên meydana berber

»»» R:4

# PDKÎ: Biryara serxwebûnê, biryareke dîrokî û girîng e




**Deftera Siyasî a PDKÎ derheq biryara serxwebûna Herêma Kurdistanê daxuyaniyek belav kir.**

**Deqa daxuyaniyê:**

Daxuyaniya Deftera Siyasî a PDKÎ derheq biryara birêvebirina referandomê li Başûra Kurdistanê

Piştî heyameke zêde bas û axavtinên derheq pêwîstiya birêvebirina referandomê û wergirtina boçûna tak bi takên neteweya Kurd di Herêma Kurdistanê û navçeyên Kurdistanî ên derveyî Herêma Kurdistanê, bona diyarîkirina çarenûsa vê beşa Kurdistanê, roja Çarşemiyê 07.06.2017`an, di civîneke taybet û bi beşdariya piraniya hizb û aliyên siyasî ên Kurdistana Başûr û bi amadebûna serokê Herêma Kurdistanê birêz Mes`ûd Barzanî, di encamê de, bi razîbûna tewahiya beşdarbûyiyên civînê roja 25.09.2017`an bo birêvebirina referandomê diyarî kirin.

Her di vê civînê de, riya encamdana referandomê û lêjneya hewce bo vê erkê hate destnîşankirin, û bi vî awayî dawî bi çavnihêriyan hat, û referandom wekî biryara heyî (ketwar) û hewcehiyeke dîrokî mohra yekalîker lê hate dan.

PDKÎ tevî vê ku vê biryarê wekî biryareke dîrokî û pêngaveke girîng û mafeke xwezayî li pêvajoya diyarîkirina çarenûsa vê beşê ji Kurdistanê dizane, pîrozbahiyê li serokê Herêma Kurdistanê û hizb û aliyên siyasî û civatên xelkê Kurdistana Başûr dike û rêz ji îradeya xûşk û birayên xwe di vê beşa Kurdistanê de digre, pîrozbahiyê li serokê Herêma Kurdistanê û hizb û aliyên siyasî û civatên xelkê Kurdistana Başûr dike, û rêz ji vîna xûşk û birayên xwe di vê para Kurdistanê de digre, di heman demê de, hêvîxwaz e, ku tewahiya civatên xelkê Kurdistana Başûr, vê derfeta dîrokî bi dûr ji kêşeyên rêkxiraweyî, li gora hêjayiya vê pirsê, bi kar bînin, û hemû aliyek wekî erkeke neteweyî û nîştimanî handerê (palderê) beşdariya tak bi takên civakê di vê erk û wezîfeya dîrokî û çarenûssaz de bin, bona vê ku rêjeya beşdarbûyiyên referandomê û dengderên vê mijara nîştimanî li gora girîngiya biryara dîrokî be, ku çavê dost û dilsojên Kurd bi awayekî û heya neyarên Kurd jî bi awayekî din li ser e, û pêwîst e, Kurd di vê rewşê de, bo vê meremê yekdengî û yekpêngaviya xwe nîşan bide, bi awayekî ku encama rapirsiyê bi civaka cîhanî biselimîne, ku referandom îradeya hemû aliyekî û hemû takên Kurd e, û ya ku jê dikeve, xwestek û îradeya hemû neteweya Kurd di Herêma Kurdistanê û navçeyên Kurdistanî ên derveyî Herêma Kurdistanê ye.

Her di vê derheqê de, PDKÎ ku referandoma ji bo diyarîkirina çarenûsê bi mafê bêgotin ê Kurd li Kurdistana Başûr de dizane, û encamdayîna wê, wekî erkeke dîrokî dadinê, daxwazê ji endam û alîgirên xwe dike, ku palpiştî û alîkarê serxistina vê biryara dîrokî û neteweyî ya xûşk û birayên xwe di Kurdistana Başûr de bin, her wekî ku hizba wan ya hezkirî, hertim piştevan û piştgirê maf û azadiyên xortên Kurd di her beşeke Kurdistanê bûye, û heye, û di her qonaxeke dîrokî de, rêz ji îrade û xwestek û hez û hêviyên wan girtiye.

Bi vê hêviyê ku referandom di Kurdistana Başûr de, bi awayekî serkevtî û bi yekgirtineke tewaw ve, wekî erkeke neteweyî û nîştimanî bi rê ve here, û encama wê jî, dabînkerê berjewendiya Kurd û maf û azadiyên wê be.

**PDKÎ**
**Deftera Siyasî**

**20.03.1396**
**10.06.2017**

## Rêûresma vekirina baxçê zarokan a “Pepûle” di “Azadî”yê de, bi rê ve çû




Di rêûresmeke bicoş de baxçê zarokan a “Pepûle” di kempa Azadî û bi beşdariya nûnerên rêkxirawa AVC International û hejmareke berçav ji endamên rêberiya PDKÎ û malbatên wan bi rê ve çû.

Nûçegihanê malpera Kurdistanmedia ragehand ku êvariya roja Pêncşemiyê 25.03.1396`an di rêûresmekê de, baxçê zarokan a “Pepûle” bi vêdedana perdê li ser tabloya vê baxçeyê ji aliyê Havjîn Husênî keça Kak Barzan Husênî ve dest pê kir.

Piştre xanima Sirayna Niwêş bi nûnertiya vê rêkxirawê peyamek pêşkêş kir.

Navbirî destpêkê de, pîrozbahî li hemû zarokan û malbatên vê kempê kir, û herwisa bas ji vê kir ku wekî erkekê di hemberî zarokan, me ew kar encam daye, bona vê ku jiyaneke xweş bo wan dabîn bikin.

Wê di beşeke din ya axavtina xwe de spas û pêzanîna xwe ji hemû malbatan û wan kesan re şand ku bi awayekî mandînenasane û xwebexşane kar kirine.

Navbirî herwisa bas ji vê kiriye ku dabînkirina jiyana xweş ji bo zarokan cihê şanaziya me ye, û em berdewam dibin ser encamdayîna vî karê pîroz.

Di beşeke din ya vê rêûresmê de, bona spas û pêzanîn ji hewl û tekoşîna wan kesên ku xwebexşane kar kirine di vê pirojeyê de, diyariyek ji aliyê vê rêkxirawê ve, bi Selîm Zencîrî, Fereydûn Ezîmî, Tahir Pîre Omeranî û Xalid Derwîje hate pêşkêşkirin.

Piştre Hesen Şerefî cihgirê sekreterê giştî ê PDKÎ çend gotinek pêşkêş kirin.

Şerefî di axavtina xwe de tevî spas û pêzanîna xwe ji vê rêkxirawê bo encamdayîna vê pirojeyê û cihekî diyar ji bo zarokan, hêvî xwast, ku hertim erk û wezîfeya xwe, li hemberî zarokan wekî nivşa pêşerojê bi başî bi cî bigehînin, û berdewam bin li ser birêvebirina pirojeyên bi vî rengî.

Cihgirê sekreterê giştî ê PDKÎ di beşeke din ya axavtina xwe de spasiya hemû wan kesan kir ku bi hewl û tekoşîna xwe di encamdana vê pirojeyê de xemsarî nekirine.

Di beşeke din ya vê merasimê de, ji aliyê Mela Ehmed Rehîmî berpirsê Komîsyona Komelayetî ya PDKÎ ve, lewheke rêzgirtinê pêşkêşî rêkxirawa AVC International hate kirin.

piştre ew park ji aliyê Hesen şerefî û Sirayna Niwêş ve bi awayekî fermî fate vekirin. Di vê merasimê de, çendîn stran bi zimanê Îngilîzî ji aliyê Tabiya Şopax ve hatin pêşkêşkirin.

## Diya şehîdekî riya rizgariya Kurdistanê li Nexedê koça dawiyê kir




**Kurdistanmedia: Nazê Parsa diya şehîdekî PDKÎ li bajarê Nexedê xatirê xwe ji jiyanê xwast.**

Li gora nûçeya ku gihaye malpera Kurdistanmedia, roja Sêşemiyê 23`ê Cozerdanê Nazê Parsa diya şehîdê sorxelate gelê me şehîd Celaledîn Bîdox bi sedema nexweşiyê di temenê 87 saliyê de di nexweşxaneya bajarê Nexedê de koça dawî kir.

Nazê jineke dilsoj û xemxor ji bo gelê xwe û xweşnav di nava dost û nasyaran de bû, û termê navbirî di nava girseya xelkê navçeyê de bi axê hate spartin.

Şehîd Celaledîn Bîdox di sala 1341`an de, li bajarê Nexedê ji dayîk bûye. Navbirî pêşmergê hêza şehîd Efşîn bû, û di şerê li dijî dagîrkeran de, li gundê Qelatan di roja 6`ê Xakelêweya sala 1359`an de şehîd bû.

PDKÎ sersaxiyê li malbat û xizm û kesûkarê navbirî dike, û xwe hevparê xema wan dizane.

## Çalakiya teblîxî li bajarên Kurdistanê bo piştevaniya ji Rasanê bi rê ve çû

**Endam û alîgirên PDKÎ di çendîn bajarên Kurdistanê de, piştevaniya xwe ji Rasanê ducarî kirin.**



Li gora nûçeya ku gihaye malpera Kurdistanmedia, hejmarek ji endam û alîgirên PDKÎ, di salvegera destanrêsiya Qereseqelê de li gund û bajarên Kurdistanê, çalakiya teblîxî bo piştevaniya ji Rasanê bi rê ve birin.

Têkoşerên Demokrat li bajarê Şinoyê, bi armanca piştevaniya ji Rasanê, di vî bajarî de dest kirin bi çalakiya teblîxî û bi nivîsandina diruşmên li ser dîwar û kolanên vî bajarî, cardin emegdariya xwe bo rêbaza PDKÎ eşkere kirin.

Herwisa roja borî têkoşerên Demokrat li gundê Tengîser bi boneya salvegera şehîdbûna şehîdên Qereseqelê û rêzgirtina ji hemaseya wan qehremanên Demokrat çalakiya teblîxî bi rê ve birin.

Qehremanên Demokrat li gundê Tengîser wêneyê şeş şehîdên bajarê Şinoyê, rêziknameya PDKÎ, û ya Lawan, û kurte basek li ser jiyana Dr. Qsimlo û kurte basek li ser jiyana Qazîmihemed û Dr. şerefkendî belav kirin.

## Têkoşerên demokrat qewdên gulan li ser cihê destanrêsiya Şinoyê danîn

**Endam û alîgirên PDKÎ di salvegera şehîdên Rasanê de, qewdên Gulan di cihê şehîdbûna şehîdên Rasanê de danîn.**

Li gora nûçeya ku gihîştiye malpera Kurdistanmedia, têkoşerên Demokrta bona rêzgirtina ji qehremantiya şehîdên Rasanê li bajarê Şinoyê, û emegdariya xwe bi rêbaza wan, di salvegera şehîdkirina desteyek ji pêşmergeyên PDKÎ de qewdên gulan li cihê destanrêsiya wan de danîn.

Roja 26`ê Cozerdana 1359`an tîmeke pêşmergeyên PDKÎ li bajarê Şinoyê,li gundê Qereseqelê di dema encamdana karê siyasî û teşkîlatî ketin ber êrîşa hêzên Spaha Pasdaran a terorîst û di şerekî qehremanane de, şeş pêşmergeyên PDKÎ şehîd bûn, û hejmareke bercav jî, ji caş û bikirêgirtiyên rejîmê hatin kuştin.

### »»» Doma manşêtê

siyasî, ferhengî ên Kurd û Belûç û Ereb û bi tohmeta pêwendiya wan digel taqmên terorîstî wan bixe nava reşçalan de.

Piştî bûyera Tehranê hêzêzn serkutkar ên Spahê û Wezareta Îtila`ata rejîmê rabûne ser xwe, û di gellek ji bajarên Kurdistanê de, di bin fermana “ateş bi ixtiyar” (bi dilê xwe agir bibarîne), a Elî Xamineyî, destbiser kiriye, ku qedera beşek ji wan bi ne zelalî maye.

Elî Xamineyî di lêdwan û axavtineke pirr ji kerb û kîn de, rû li aliyên tundrev ên ser bi rêberiyê, piştî 38 salan ku bi ser fetwaya Xomênî re derbaz dibe, bi awayekî din biryara cîhadê daye, û wekî rênîşandana bi terorîstan, daxwaz ji wan kiriye, ku rasterast bêna nava qadê û helwetsê bigrin. Di vê derheqê de PDKÎ di daxuyaniyekê de, bi awayekî fermî siyasetên qirêj ên rejîmê şermezar kirin û tevî mehkûmkirina reftara serberedayiyane ya rejîmê derheq girtin û zindanîkirina hevwelatiyan ragehand: “Bûyerên di Tehranê de rû dan, hêcetek bûn ku rejîmê bi kar anî, bona vê ku kiryarên xwe ên terorîstî pê veşêre, û di heman demê de zexta li ser dijberan û rexnegiran li jêr nave şerê tundreviyê, zêdetir geş bike. Eva di demekê de ye ku bixwe yek ji avaker û alîkarê serekî ê taqmên terorîstî ye di navçeyê de”.

### »»» Doma sergotarê

ekaniya hêzan eşkere dibe ku nabe li ber çavan bê windakirin.

Di Tehranê de, ewlehiya rizî ya rejîma Îslamiya Îranê û fişefişa Spaha Pasdaran ketiye metirsiyê de, û Ramboyê Komara Îslamî ku her rojê li cihekî Îraq û Sûriyê wêneyên wê belav dibin, ku gotina ewlehiya “herem”an diparêze, derket ku ew jî poldaqek betal e, û nekarî ewlehiya meclisê û qebrê avakerê rejîma wan biparêze.

Xamineyî ku heybeta wê ya derevîn kete metirsiyê de, dest bi vir û derevan kir ku gotina ew dixwazin êdî digel terorîzmê şerê dawiyê bikin, eva di demekê de ye, ku terorîzm çi Şî`e û çi jî Sunî ji aliyê Komara Îslamiya Îranê ve hatiye vegeşandin.

Lê bûyerên di asta giştî ya navçeyê de tişteke din dibêjin, û tenê di asta vê êrîşa li ser meclisê û qebrê Xomênî û dijkiryarên wê de kurt nabin, belkû hevkêşeya hêzê di navçeyê de cardin dadirêje.

Hinek çavkanî bas ji vê dikin ku ew mûşekên ku gotina Spaha Pasdaran avêtina Dêrelzorê, di rastî de binkeya mûşekî ya Rûsiyê di Hemedanê de, di bersiva êrîşa Amerîkayê bo ser balafirên Sûriyê avêtine, û alîkariya hêzên Beşar Esed dane da ku nêzî sînorê Îraqê bibin.

Parçeyên vê pazêlê, di Rojhilata Navîn de hêdî hêdî tekmîl dibin, û welatên Erebî zextê dixin ser Qeterê, ku digel wan hevaheng be, û asta girjiya ewlehî û leşkerî di navbera Erebistan û Îranê de bilind dibe, û di Sûriyê de, hêzên Amerîkayê rasterast êrîşê dikin ser hêzên Esed, û şerê Mûsilê ber bi tewawbûnê ve diçe, û kêşeya Kurd û Şî`e di Îraqê de serî radike, û referandom jî dema wê tê diyarîkirin, û komara Îslamiya Îranê hêcetan dibîne ku Kurdistana Rojhilat, di bin potînên pasdaran de bêdeng bike, û ji tirsa leyîza bi teqteqokan, renge enbara teqemeniyan di Kurdistanê de biteqe û …hwd.

Dema ku tu li dûrdîmenê dinêrî, û wêneya wê ya gelemperî bi hev ve dizeliqînî, wê demê ew gotina Tîlirson tê bîra mirov, ku got, stratejiya siyasî di Rojhilata Navîn de, tê guhertin, û ew alîkariya guherîna aştîxwazane di navxwe ya Îranê didin.

Bi van hûrbîniyan em digihîjin vê encamê, ku tirsa Xamineyî ji leyîza bi teqteqokan (tereqebaziyê), renge di pêşerojê de, bibe sedema vê ku, teqteqokên zêdetir li ber piyên wî biteqin, û bibe kabûsa jiyan wî.

## Pêşmerge û stratejiya rasana Rojhilat





**Mihemedsalih Qadirî**

Dema ku cînosayd, qirkirin û helandina gelê Kurd, wekî piroseyeke domdirêj û sîstematîk ji aliyê deshilata dagîrkar a navendgera ve bû eqliyeta zal, êdî berjewendiyên bilind ên netewyea serdest ji aliyê dewleta wê ve bû alava cîbicîkirina hemû siyasetekê, û bo vê mereme jî jîngeha yasyaî ji xwe re amade kirine da ku destûr û yasayî jî, van berjewendiyên deshilata dagîrkar garantî bikin û biparêzin.

Di rewşeke weha de em dibînin ku dewlet bi hemû alav û taybetmendiyên xwe ve dikeve xizmeta cîbicîkirina vê eqliyetê û piştî vê hikûmetê, parlemento û sîstema dadwerî û spah û polîs û dezgehên perwerdehî û ragehandin û hwd…, van siyasetan cîbicî dikin, û êdî ew siyasetên dariştî û eşkere û arastekirî ên deshilata dagîrker, hemû cudahiyên nasnameyî ên netewe û pêkhatên din binpê dike, û di heman demê de, her cure hewl û xebata wan di pêxema şikandina nîrê koletiyê û rizgarbûna ji dest dagîrkariya deshilata navendî bi hêceta parastina yekparçeyiya xaka welat û serberedayiya neteweya serdest bi awayê herî hovane serkut dike.

Di rewşeke bi vî rengî de, dewleta dagîrkar bona vê ku bikare siyasetên xwe şorr bike nava civakê de, kultura serdest dike bingeha herî baş da ku ji vê riyê ve îdeolojiya xwe ya fermî berhem bîne, û bi riya vê îdeolojiya xwe jî palpiştiya hemû siyasetên nerewa ên xwe bike.
Di vir de ew îdeolojiya fermî rewşekê pêk tîne, ku tê de nasnameyên cuda wekî dêwekî tirsnak tê pênasekirin, û ji vê riyê ve bo her cure xebateke rizgarîxwazî sîma û rûçikeke tirsnak wekî dijî şoreş û teror û cudahîxwazî ji wan çê dike. Herwisa em dibînin ku pênasekirin û çêkirina wêneyekê di çarçoveya terorê de ji neteweya bindest ji aliyê dewleta dagîrkar ve, tenê navxwe a welat bi xwe ve nagre, belkû hewla berfirehkirina vê wateyê, bo asta navdewletî jî tê dayîn, da ku bîrûraya giştî ya cîhanî digel xwe rêk bixin, da ku tu aliyek siyasetên wan yên zalimane nebe jêr pirsyar, û bi vî rengî bi cîhaniyan bêjin ku ya ku em dikin, berbirûbûna mafxwaziyê nine, belkû berengarbûna terorê ye.

Di heman demê de dema ku dewleta dagîrkar haşayê ji vî mafî mafî bike, û di bin perdeya îdeolojiya xwe ya fermî de, dirêjiyê bide dagîrkariyê, û daxwaziyên neteweya bindest ret bike, êdî civaka mirovî, û navendên mafê mirovan ku mafê neteweyên bindest jî bi xwe ve digre, wekî buha û pirensîpeke navneteweyî lê hatiye ku bûye pîvan bo diyarîkirina rade û

## Nûçegihaniya Mêhr avakirina dewleta Kurdistanê wekî dewleta DAÎŞ'ê bi nav kir



**Nûçegihaniya Mêhr ku di destpêkê de nivîsandibû: "Binûsin welatê Kurdistan" lê bixwînin "welatê DAÎŞê", piştre sernûçeya xwe guherî û kire "referandom bo avakirina welatê Kurdistan ya Daîşîzım di kinceke nû de".**

Nûçegihaniya Mêhr ku nikare dijberiya xwe digel avakirina deshilateke Kurdî di cîrantiya Rojhilata Kurdistanê de tab bike, û hemû riyan bo serneketina vê rapirsiyê û heta birêveneçûna wê diceribîne, wekî pîşeya xwe ya hertimî dest bi weşandina vir û derev û çewtekariyan li dijî vê herêmê kiriye.

Nûçegihaniya Mêhr di destpêkê de dinivîse ku: "Hinek ji partiyên Kurd ên Îraqê hevdem digel êrîşa terorîstî ya DAÎŞ'ê di Tehranê de biryara referandomê dan".

Nûçegihaniya Mêhr di nava vê nûçeya xwe de, biryara referandomê û hewldana bo AVAKIRINA dewleta Kurdistanê di çarçoveya terheke Amerîkayî de dide nîşandan, û dinivîse ku: "Avakirina deshilata saxte û tezwîr ya Kurdistanê xewneke mêjîn a Amerîkayê ye, bo peyakirina xerîteya Împeryalîstî ya Rojhilata Navîn ya nû, û di çarçoveya pirojeya dagîrkariyê a naskirî bi pirojeya "Baydin" de ye, ku dixwazin Îraqê bi sê welatên Sunî û Şî'e û Kurd parve bikin.

Di dawiyê de nûçegihaniya Mêhr ku dizane çawa bêhurmetî bi neteweya Kurd bi taybetî di Kurdistana Başûr de kiriye ku bûne remza xebata li dijî terorîzmê li ser asta cîhanê de, dinivîse ku hisaba Kurdên ku xizmeta welatê xwe kirine cuda ye, ku bêguman ew jî wan Kurdan bi baş û welatparêz dizanin ku xizmeta xewnên wan ên gemar ji bo têkdana ewlehiya Herêma Kurdistanê û di dawiyê de jî hiloşandina vê deshilata Kurdî dikin.

rêjeya azadiyê di vî welatên cuda de. Di vê navberê de mafê diyarîkirina qederê yek ji wan bingehan e ku civaka cîhanî bawerî pê heye, û neteweyên serkutkirî dikarin ji riya pirensîp û mîkanîzmên demokratîk û heta paratsina rewa jî hewla desteberkirina mafên xwe bidin.

Her wekî ku em dizanin serbarê vê ku Îran welatekî çend neteweyî û çend kulturî ye, lê sîstem û modêla dewlet-netewe wekî diyardeyeke modern di Îranê de li serdema Reza şah û li serûbendê şerê yekem ê cîhanî ve dest pê kiriye. Ji vê demê ve hewlên yeksansaziya neteweyî li gora nasnameya neteweya Fars di Îranê de hatiye darêtin, û bi vî rengî nasnameya neteweyên wekî Azerî, Kurd, Ereb, Belûç û Turkeman û Gêlekî û …hwd, hatine binpêkirin, û îdeolojiya neteweya serdest û kultura wê, kirine nasnameya Îranî, û destûrê jî ew nasname û berjewendiya jê re garantî kiriye. Di serdema Pehlewiyê duyem de, ew yekparçesaziya gihîşte asteke tirsnak û diyardeya ji xwe bîhanîkirina nasnameyên cuda gehande lûtkeyê (gopkê), lê dema ku şoreşa gelên Îranê rû da, êdî hêviyek çê bû ku înkar wê bi dawî hatiba.

lê mixabin me dît ku piştre îdeolojiya Wilayeta Feqîh bû jêrxana serekî, da ku siyaseta înkarê berdewam be.

Bo vê meremê, me dît ku Wilayeta Feqîhî kirin nasnameya fermî ya sîstem û ayîn û taybetmendiyên kulturî ên bicihmayî ên pehlewî bûne nasnameya fermî ya zal di civakê û sîstema hukimraniyê de, û em dibînin ew rejîma jî tevî serkutkirina îrade û nasnameya neteweyên din, û qorixkirina hemû deshilatan ji aliyê deshilata navendî ve, tu cudahiyeke wisa digel sîstemên berî xwe nine.

Bi vî awayî hekî em li dîroka hevçerx a Kurdê Rojhilat binêrin, em dibînin ku çendîn dehik e ku neteweya Kurd di Rojhilata Kurdistanê de, nivş piştî nivşê, di pêxema serweriya neteweyî û rizgariya nîştimana xwe de, xebat kiriye, û tevî hemû evraz û nişîv û pîlanên navxweyî û derekî û karesat û terajidyayên mezin, lê serî di hemberî siyaseta bikolekirin û bindestkirinê ji aliyê dagîrkerên Kurdistanê de netewandiye.

Lewra îrorojê jî digel de be, tu yek ji deshilatên berdewam ên Îranê ku siyaseta helandina nasnameya neteweyî ya Kurdan bi rê ve birine, nekarîne ku neteweya Kurd neçarî serîtewandinê bikin. Dawî mînaka berçav ya vê siyaseta înkar û qirkirin û xwe sepandinê jî Komara Îslamî ye. Ew rejîma dijî mirovî ku nêzî çar dehikan e, ji hemû cure alaveke serkutkirin û helandinê mifahê werdigre, da ku bibe serdestê reha (mutleq) di Kurdistanê de.
Lê bergirî û xweragiriya xelkê û têkoşerên Rojhilata Kurdistanê, berdewam ew yek pê selimandiye ku serbarê hemû hovîtî û kuştarên vê rejîma dîktator, zehmet e ku îrade û vîna rizgarîxwaziya xelkê Kurdistanê bê têkşikandin.

Niha ku nêzî çar dehikan, bi ser deshilatdariya Komara Îslamî re derbaz dibe, em dibînin ku kindirê sêdare, îşkence, girtin, ferq û cudahîdanîn, sivikatî û binpêkirina mafê mirovan, û milîtarîzekirina Kurdistanê û …hwd, bi awayekî sîstematîk berdewam dike, û hişmendiya navendxwazî û şovenîstî ya karbidestên vê rejîmê, cuda ji netewe û kultura serdest, tu cihek ji bo nasnameyên din nabîne. Ew eqliyeta rejîmê siyasteke wisa berhem aniye, ku tê de neteweya Kurd wekî kêmaniyeke kulturîqewmî hatiye nîşandan, ku dawî car dibe serî bo serweriya kultur û şovenîzma deshilata zal bitewîne. Di heman demê de, ji riya bidewletîkirina terorîzmê û handan û palpiştîkirina rejîmê ji deste û taqmên terorîstî-cîhadî, bo dijberiya xebata azadîxwaziya xelkê Kurdistanê û herwisa destêwerdana di nava karûbarên welatên navçeyê de, bi xeyala xwe wisa nîşanî cîhana derve daye ku êdî îradeyek nine di hember de bisekine.

Her lewra jî, xelk û têkoşerên Rojhilata Kurdistanê, neçar bûn ser ji nû bi hemû şêwazeke xebata rewa, di pêxema valaderxistina van tawankarî û serberedayiyên rejîmê, ku derheq bi wan dike, û ji aliyekî din ve bona bersivdayîna bi vê pêwîstiya dîrokî, siyasî û civakî ku tevgera me niha di Rojhilata Kurdistanê de, tê re derbaz dibe, dest bidin qonaxeke nû ji xebatê, heya ku hevterîb digel guhertinên bilez ên navçeyî û navdewletî ku bandora rasterast li ser hevkêşeyên siyasî ên pêwendîdar bi welatên dîktator ên navçeyê heye, bikarin mafên neteweyî ên xwe desteber bikin.

Di vê navberê de şovînîzma serdest di Îranê de digel neteweyên bindest ên wekî Kurd, Tirk, Azerî, Erebî (Ehwaz) û Belûç û Turkeman û … hwd, bi metoda gef û sivikatîpêkirin û danîna ferqê û helandina fîzîkî serederî kiriye, û têgeh û çemka dagîrkariyê di piratîkê de peya kiriye. Şovînîzma ayînî û netewyeî di Îranê de bi sedema kelekbûna zêde ji qas ya zulm û tawankariyan, nêzî kendal bûye, û bi xatircemî ve hekî berdewama bike, û ber bi demokratîzekirina welat û qebûlkirina nasnameya neteweyên pêkhînerê Îranê ve pêngavan hil negire, dûr nine ku di pêşerojeke nêz de wekî Îraq û Sûriye, û welatên wekî wan lê bê, û kerb û kîn û bêzariya xelkê biteqe û wan ber bi lêva kendalê herifîn û parçe parçebûnê ve bibe. Rastiya vê boçûnê jî ji vir ve çavkanî digre, ku em dibînin neteweyên bindest roj li pey rojê zêdetir xwe girê didin bi nasnameya xwe ve, û rizgariyê dikin xûdîka nîştiman xwe.

Pêwîst e ku ji kanala vê rastiyê ve em xwe li pêşberî vê pirsê de bibînin, ku gelo baştirîn bersiv bo vê rejîma ku xebata nasnamexwazî û xwesteka rewa ya xelkê û çalakiyên medenî ên wan bi çek û serkutê bersiv dide, çiye? Bersiva vê pirsê jî di vir de xwe dibîne, ku em dibînin niha di Rojhilata Kurdistanê de, nivşeke nû ya guhpênedayî û zulmlêkirî serî hildaye, ku êdî dixwaze bi mikanîzma hêzê ve berbe canê demûdezgehên dîktatorî û dagîrkariyê. Nivşa nû ya gelê Kurd hewlên xwe xistiye ger, da ku tevî hemû biyavên xebatê, parastina rewa jî bike yek ji alavên valaderxistina siyaseta înkarê a Komara Îslamî.

Ew valaderxitina jî, rewayiya xwe ji bêmafî û bindetsiya gelê Kurd werdigre, ku bi riya Rasan a Rojhilat wekî çepera herî bibandor ya parastina wan, bûye adresa xebata li dijî dagîrkariya rejîma Îranê.
Di vî warî de, Rasan a Rojhilat û pêşmergeyên qehreman pê dadinên nava qada parastina rewa, da ku mil bi milê welatparêzên Kurdistanê bona valaderxistina siayseta dagîrkarî û serkut a rejîmê û ji bo bidetsveanîna mafê netewyeî ê gelê Kurd erk û wezîfeya neteweyî û nîştimanî ya xwe bi cî bigehînin.

Bi vî awayî rasana Rojhilat navnîşanê nivşa nû ya xebatekê ye ku dixwaze riheke nû bibexşe tevgera rizgarîxwaziya Rojhilata Kurdistanê.

Ji wir ve ye ku îradeya gelê Kurd bo bidestveanîna serweriya xwe, dibe xemeke rojane û hêza pêşmerge jî wekî yek ji emrazên parastina rewa bona bi cî gehandina erk û wezîfeya Rasanê, tê qadê da ku bi civaka Kurdistanê bêje, ku ew di berengariya dagîrkar de bi tenê nînin, herwisa vê peyamê jî bigehînin dagîrkeran ku hêza pêşmerge ew kelha qahîm e ku bi hêz û şiyana lawan û civatên xelkê Kurdistanê, dibe hêza parêzerê ewlehî û demokrasî û buha û nirxên mirovahiyê, ên xelkê Kurdistanê, û mil bi milê wan heya serkevtina yekcarî dev ji xebatê ber nadin.

Bi vî rengî em dibînin ku Rasan a Rojhilat wekî pêwîstiyekê, ji aliyê PDKÎ ve li dijî rejîma Îranê ketiye warê piratîkê de, û tevî vê ku heya niha çendîn pêşmergeyên qehreman û heya endamên rêberatiyê jî, di pêxema pêkvegirêdana xebata çiya û bajar de, riha xwe fîda kirine, û heya niha bi dehan têkoşeran jî ji aliyê rejîmê ve hatine destbiserkirin, û hukmê girtinê bi ser wan de hatiye sepandin, lê em dibînin ku rasan û xebata rewa ya gelê me roj li pey rojê zêdetir geş dibe û tevî hevsoziya berfireh ya xelkê, em dibînin ku deste deste ciwanên bêzar ji jiyana koletî û bindetsiyê, bona beşdariya di rasanê û xebata parastina rewa, rû dikin refa pêşmergatiyê, heya ku para şanaziya xwe ji vê xebata rizgarîxwaziyê bi dest ve bînin, û piştevaniyê ji xebata nerizayetiya cemawerî ya xelkê Rojhilata Kurtdistanê li dijî rejîma dagîrker ya Îranê bikin.

Rasanek ku ji niha şûnda wekî kelhekê bihêz, bona berbirûbûna hêma û nîşanên dagîrkarî û serkutê li Kurdistanê, biyavên cuda cuda de berdewam xwe teyartir dike, û bi piştevanî û palpiştiya tak û civaka Kurdistanê bona rizgariya nîştiman û biryar dana li ser qedera wan, şerê li dijî dagîrker û destûpêwendiyên wan di Kurdistanê de, ji erkên sereke ên vê rasanê dibe.

Di vir de pêwîste ku em rû bikin Kurdistaniyan (jinan, ciwanan, tex û qat û pêkhateyên cuda), yên ku baweriya wan bi sewerî, kerameta mirovî û deshilata demokratîk heye, ew dixwazin ku bi xweragirî û berengarbûna di hemberî dagîrkar de, jiyaneke azad û bextewer hebin, û rû bikin refa rasanê, rasanek ku bi palpiştiya kurdistanê, Komara Îslamî û koleyên wê dixe qedeman.

# Nerîna Lîderan



Barzanî: “Ez di bin alaya Kurdistanê de ji dayîk bûme, û dixwazim di bin alaya Kurdistana serbixwe de jî bimrim”.



Salih Mislim: “Ti ferqa Îranê û rejîma Sûriyê nîne”.



Erdogan bo Amerîkayê: “Hûn çima li Kobanî firokexane çêdikin?”.



Altan Tan: “Bila Tirkiyê rêzê ji biryara Kurdan bigire”.

## Baydemir: Helwesta Tirkiyê tall û bijehr e

**Piştî vê ku Tirkiyê helwesta xwe derheqê biryara referandomê de eşkere kir, HDPê bi tundî bersiva vê helwesta Tirkiyê da.**

Osman Baydemir parlemanterê Kurd û berdevkê HDP helwesta Tirkiyê ya derbarê biryara referandomê de, bi helwestekî tall û bijehr bi nav kir.

Navbirî li ser referandoma serxwebûna Başûra Kurdistanê got: “A niha Başûra Kurdistanê xebat û amadekariya referandumekê dike. Ji her 4 aliyên cîhanê ve peyamên derbarê rêzgirtina ji îradeya gelê Kurd tên. Lê belê peyama Enqerê weke her car jehra mar e.Gelek vekirî û zelal dibêjim, mafên Tirk, Fars û Ereb çi bin, gelê Kurd jî weke xwediyê vê coxrafiya kevnar, ew maf ne kîm ne zêde heye”.

Osman Baydemir piştre bas ji îradeya




Kurdan di Başûra Kurdistanê d ekir û got: “Eger birayên me yên li Başûra Kurdistanê bi rêya parlamentoya xwe, û bi riya partiyên xwe yên siyasî û bi îradeya xwe ya siyasî her biryarekê bidin, bila bidin, ya ku dikeve ser milê me, rêzgirtina ji wan e”.

Hêjayî basê ye piştî vê ku Tirkiyê çend caran alaya Kurdistanê di dema serdana berpirsên payebilind ên Herêma Kurdistanê de, li rex alaya Tirkiyê danî, gellek ji çavdêrên siyasî ser vê baweriyê bûn ku ew yek tê wateya dijberînekirina Tirkiyê di gel egera biryara referandomê, lê her piştî vê biryarê derket ku helwesta Tirkiyê wekî ya Îranê helwesteke tund û nerênî ye.

## Di Îranê de qatilên Behayiyekî tê berdan, û gellek Behayî rapêçî girtîgehê têne kirin

**Aliyê kêm heft Behayiyên parêzgeha Gulistanê rapêçî girtîgehê hatin kirin, û eva di demekê de ye, ku tohmetbarên kuştina hevwelatiyekî Behayî di Yezdê de, bi danîna wesîqeyê hate berdan.**

Çar Behayiyên bi navên Meryem Dêhqan Yezdilî, Mojdê Zihûrî (Fehindij), Fereh Tebaniyan (Senayî) û Hûşmend Dêhqan Yezdilî, ku di sala 1394`an de, tevî bîst hevwelatiyên din ên Behayî di parêzgeha Gulistanê de, hukmên girtinê bi ser wan de hatibû sepandin, roja borî bi çûna hêzên rejîmê bo cihê akincîbûna wan hatin girtin.

Herwisa Şêyda Qidusî, Pûnê Senayî (Teymûrî), û Nazî Tehqîqî sê hevwelatiyên din ên Behayî ne, ku ji aliyê Îtila`atê ve hatin vexwandin bo îdareya Îtila`atê, da ku hukmên wan bi wan bê ragehandin. Ji aliyekî din ve Civaka Cîhanî a Behayiyan jî bi derkirina daxuyaniyekê bas ji azadkirina du tohmetbarên di kuştin Ferheng Emîrî de kiriye.

Wan dun bikujan ragehandine ku wan seba vê ku Ferheng Emîrî Behayî bûye, kuştine, û di pilana wan de bûye ku gellek Behayiyên din jî bikujin. Azadiya tohmetbaran li gora hestyariyên cîhanî ên vê dosyeyê dikare nîşana eşkere ya bêdadiyê be, di Komara Îslamiya Îranê de. Nûnera civaka Behayiyan di NY de bi navê Diyan Elayî dibêje: Biryara azadkirina du qatilên kesekî Behayî, karekî gellek xirab û cihê mixabiniyê ye. Çawa sîstemeke qezayî a dadperwer dikare du qatilên kesekî bêguneh seba baweriyên wî bikuje, û piştre jî bas ji hewla xwe bo kuştina Behayiyên din jî bike, lê ew kes bêne azadkirin.

Her di vê derheqê de tê gotin, ku yek ji berpirsyaran bi awayekî veşartî bi malbata Emîrî pêşniyar kiriye ku dev ji vê dosiyeyê û şikayeta xwe berdin, hekî ne, hûnê bikevin nava rewşeke xirab de.

Serbarê berdana van du bikujên kesê Behayî, qazî ragehandiye ku hekî malbata kesê Behayî dev ji dozvekirina li dijî van du kesan bernedin jî, cezaya qatilan, wê her cezayekî sivik be, jiber ku kesê ku hatiye kuştin ne Misilman e.

Yasaya cezayî ya Îranê diye û qesasê tenê bo Misilmanan û sê kêmaniyên dînî ên wekî Mesîhî, Kelîmî, û Zerdeştiyan qebûl dike, ku di yasya Bingehîn de îşare pê hatiye kirin. Ew yek bûye sedema vê ku Behyaî ji mafê xwe bi awayekî yasayî bêne bêparkirin, û rastî tundûtîjî û bêdadiyê bên. Li gora gotina xanima Elayî, Kuştina Emîrî bi awayekî eşkere encama bi salan, piropagendeyên bikîn û tûjkirin û handana bo aliyê tundûtîjiyê li dijî Behayiyan di nava ragehandinên rejîma Îranê de ye. Di van salên dawiyê de, hejmara fîlm û mijarên din ên dijî Behayî di Îranê de zêde bûne. Lêkolîneke ragehandinî ku ji aliyê Civaka Cîhanî a Behayiyan ve pêk hatiye, nîşan dide ku di navbera salên 2013-2016`an zêdetir ji 20 hezar mijarên bi vî rengî hatine belavkirin, eva serbarê sedan xutbeyên mesebî ye li sertaserî welat, li derbarê qedexeya rabinûrûniştina digel Behayiyan, û handana wan bo tundûtîjiyan li dijî Behayiyan.

## Leyîza bi teqteqokan, hêceta hikûmeta wehşetê





**Kerîm Perwîzî**

Di doma êrîş û bûyerên roja 17'ê Cozerdanê ku li ser bingeha daxuyaniyên Saziyên Îtila'atî ên Îranê 17 kuştî û nêzî pêncî birîndaran li pey xwe anîn, ya ku li ber çavên xelkê cîhanê eşkere bû, û piştre xelkê cîhanê şahidê rûçikê rasteqîne ê rejîma Îslamiya Îranê bûn, pêk tên ji:
-Bi salan e ku rejîma Îranê çavkaniya sereke ya tevdanîkariyan û şer û fitnê û piştevanê bê gotin ê terorîzma navneteweyî ye, û bi awayekî veşartî digel girûpên terorîstî ên selefî ên cîhadî pêwendî heye. Cihê heyrîmanê ye, ku ew rejîma ku li ser bingeha hizra Wilayeta Feqîhî hatiye avakirin, digel girûpên tundrew ên selefî ê cîhadî pêwendiya wan bi hev re hebe, ew girûpên ku xwe û hebûna xwe li dijberîkirina hizrên wekî hizrên Komara Îslamya Îranê de dibînin.!!

Lê di dema vê bûyerê de derket ku ew terorîzma xwedîkirî ji aliyê rejîma Îranê ve rojekê ji rojan, wê pêsîra wan bi xwe jî bigre û yek ji heman hevalbendan di nava dilê paytext û di nava hewşa meclisê de û li nêzî gora avakerê wê de, serî radike û pê vedide.

Şer û pevçûn di navbera terorîzma Komara Îslamiya Îranê û Spaha Pasdaran digel selefiyên cehadî û DAÎŞê nîşana rewabûna yek ji aliyan nîne, belkû nîşana dijberiya demkî ya berjewendiyan e, û renge wan bi awayekî li hev kirine, û dibin hevalbendê hevdu.

-Spaha Pasdaran û Saziyên Îtila'atî û serkutkar ên rejîma Îranê bi awayekî berfireh piropagende dikirin ku gotina ewlehiya "Herem"an di Îraq û Sûriyê de ketiye metirsiyê de, û ew dibe biparêzin! wan wisa nîşan dida ku di Rojhilata Navîn a pirr ji şer û aloziyan de, ewlehiya Îranê û navçeyên Şî'e akincî ên Rojhilata Navîn tenê ew in ku dabîn dikin.
Lê ew rastiya diveşartin ku wan pêwendiyên veşartî hebûne digel Elqaîde, Taliban, DAÎŞ û …hwd û ji van girûpan bi vê şert û mercê piştgirî dikir ku di Îranê û herêmên ku rejîm hez nake de, tu operasiyonekê encam nedin!.

Di rûdaweke wekî êrîşa li ser meclisa rejîmê û qebra Xomênî eşkere bû ku sazî û navendên serkutkar ên rejîmê tenê ji bo serkutkirina xelkê asayî û wêblagnûsan û xwendekaran û jinên bêhicab jîr in, û ew ewlehiya rizî û vala ku ew îdia dikin bi çirûskekê diçe ber ba, bi awayekî ku tenê pênc kesên çekdar ên DAÎŞî karîn paytext û raserî Îranê aloz bikin, û rejîmê neçar bikin ku rewşa awarte di Îranê de ragehînin.

-Xamineyî ji tirsa vê girûpa biçûk ya çekdar reng jê nemabû, û nedizanî ku çi bêje, herçend ku ew bûyer şibihande leyîza bi teqteqokan! Lê fermana amadebûnê dabû tewahiya hêzên xwe, û biryara "ateş bi ixtiyar" wate (deshilata tam ya her cure êrîşekê) dabû dardestên xwe.

Lê ji hemiyê girîngtir siyaseta qirêj ya wan di Kurdistanê de ye ku dixwaze bi hêceta bûyerên van daviyane, Kurdistan û Kurd û tevgera mafxwazane ya vê neteweyê wekî terorîst bide naskirin, û wisa nîşan bide ku Kurdistan navend û pêgeha terorîzmê ye. Eva di demekê de ye ku girûpên tundrê ên Îslamî di Kurdistanê de bi agehdarî û çavdêriya dezgehên Îtila'atî ên rejîmê berfirehtir bûne, û heta ji aliyê dezgehên rejîmê ve rewşa taybet ji bo geşekirina wan hatiye amadekirin, da ku bikarin ciwanên Kurd ji rê derxînin, û wan bi armanca encamdayîna operasiyonên xwetevandinê bişînin Efxanistan û Îraq û Sûriyê û ...hwd.
Rejîma Îslamiya Îranê bi vî karê xwe çendîn armanc dişopandin û ji aliyekî ve bal û dêna ciwanên Kurd ji pirsên neteweyî dûr dixistin, û ji aliyekî din ve bi bihêzkirina girûpên tundrê ên Îslamî, pêşiya hizrên neteweyî-demokratîk di civakê de digirt, û ji aliyekî din ve şevat û sotemeniya mirovî ya hewce bo têkdanê û bombedanînê di welatên din de cîbicî dikir. Lê niha ku bera agir ketiye rejîmê bixwe, êdî nikare Kurdistanê tohmetbar bike.
Tevgera neteweyî-demokratîk a Kurdistanê li ser bingeha hizrî ya xwe li dijî îdeolojiya Wilayeta Feqîh û li dijî hizrên tundrevî ya selefî a cîhadî wekî Elqaîde û DAÎŞ'ê ye, û Wilayeta Feqîh û DAÎŞ wekî du rûyên sike (perê hesin) bi bingehên fikrî ên dijî mirovî pênase dike. Dîroka Komara Îslamî nîşan daye ku di tewahiya bûyeran de, siyasetên biyom û şeytanî girtine pêşiya xwe, û ji gotara cîhanî û herêmî ya dijî terorîzmê bona serkuta xwepêşanderan û azadîxwazan mifaha şaş werdigrin.
Rejîma Îranê di salên borî de, gellek tohmet û boxtan li tevgera azadîxwazane ya Kurdistanê kirine, ji girêdayînîşandana wan bi bîhaniyan û dardestê Împeryalîzmê, û ajanê sehyonîzmê û…hwd ve bigre heya ku digihîje piştevaniya Erebistanê û Îsraîlê ji Rasan a Kurdistana Îranê û liv û tevgerên van dawiyane ên pêşmergeyan.

Lê tevgera rewa ya Kurdser bi wan aliyan nebûye, û dîrok bi rohnî şahidiyê dide, ku tevgera Kurdistanê tevgereke tewaw rewa û mirovî bûye û niha jî her wisa ye, û eva Komara Îslamî ye ku çavkanî û piştevanê terorîzma navneteweyî ye, û di vê navberê de Kurd û PDKÎ di eniya herî pêş ya xebata ji bo bidestveanîna azadiyê û dijberiya digel terorîzmê de ye, û wê demê ku PDKÎ û rêberên wê, teror û çalakiyên terorîstî şermezar dikirin, Komara Îslamiya Îranê di Ewropa û Lubnan û piştre jî di Îraqê û Sûriyê de kiryarên xwe ên terorîstî berdewam dikirin.

Ya ku di dawiya vê mijarê de dibe qala wê bihê kirin, ew e ku hewlên Komara Îslamî bona veşartina karnameya xwe ya terorîstî û navxirabkirina Kurdistanê û tevgera neteweyî -demokratîk a Kurd hewlek e bêçine ye, ku tu berjewendiya wê ji bo rejîmê nine, jiber ku wisa ketiye nava aloziyan û qofya di herêmê de, ku bi gefan û bi zextê, û bi dana navnîşanên biderev êdî nikare xwe ji xendiqîna di nava qofiya ku bixwe ava kiriye de, rizgar bike.

Tevgera rewa ya Kurdistanê û azadîxwazên Kurd tu hewcehiya wê bi xwe xulas û rizgarkirina ji dest tohmtên rejîma Îranê nînin, belkû ew tevgera bi karnameya xwe û bi dîroka xwe ya pak û mirovî li ber çavê xelkê cîhanê wekî tevgereke azadîxwaz û mafxwaz hatine naskirin, û eva Komara Îslamî ye ku wekî çavkaniya terorîzmê di herêmê de tê nasîn.

Tevgera Kurd herwisa neketiye pêgeha tohmetbar de, ku Komara Îslamiya Îranê dadwerê wê dadgehê be, belkû tevgera Kurdistanê ji bo mafê xwe yê rewa dixebite, û rejîma wilayeta Feqîh bona domandina hebûna xwe hevalbendê DAÎŞ'ê ye, û marê duserî ê terorîzmê di navçeyê de tohmetbarê serekî ye. Di rastî de şerê li dijî terorîzmê tenê wê demê digihîje serkevtinê ku hem Komara Îslamiya Îranê û hem jî tevgera selefî cîhadî-ku wekî evîndar û evîn (aşiq û me'işûq) a hev in-bêne serkutkirin, û her du bi hev re ji nav herin.

## KMMK-G daxwaza pêkanîna komîsyona lêkolînê bo nirxanidna rewşa mafê mirovan li Îranê dike




**Nûnerê Komeleya Mafê Mirovan a Kurdistana Îranê-Jinêv di 35.mîn rûniştina Şêvra Mafê Mirovan a NY de, basek li ser girtiyên siyasî û kolberan pêşkêşî vê rêkxirawê kir.**

Li gora nûçeya gihîştî bi Ajansa Nûçegihaniya Kurdpayê, roja Pêncşemiyê 25`ê Cozerdanê, Teymûr Elyasî, nûnerê Komeleya Mafê Mirovan a Kurdistanê-Jinêv di 35.mîn rûniştina şêvra Mafê Mirovan a NY de, çend gotinek pêşkêş kirin.

Nûnerê Komeleya Mafê Mirovan a Kurdistanê-Jinêv di civînê de nîgeraniya xwe derheq zorbûna destbiserkirina hevwelatiyên Kurd û kuştina kolberan li ser sînoran ji aliyê hikûmeta Îranê ve, eşkere kir.

Teymûr Elyasî di basa xwe de çû ser hukmê girtina nedadperwerane ya Mihemed Nezerî û Osman Mistefayîpûr, bi tohmeta endambûna di hizbên Kurdî ên opozisyona hikûmeta Îslamiya Îranê de, ku zêdetir ji 20 salî ye di girtîgehê de ne, û ew yek tê wateya binpêkirina eşkere ya carnameya mafê mirovan a NY û azadiya bîrûra eşkerekirinê.

Nûnerê Komeleya Mafê Mirovan a Kurdistanê-Jinêv di beşeke din ya axavtina xwe de îşare bi qewl û sozên Hesen Rûhanî derheq xelkê Kurdistanê kir, ku heya niha ne tenê ew qewl cîbicî nekirine, belkû berevajî rêjeya îdaman, teqeya rasterast li kolberan û detsbiserkirina hevwelatiyan li Kurdistana Rojhilat zêde kiriye.

Nûnerê Komeleya Mafê Mirovan a Kurdistanê-Jinêv di dawiya axavtina xwe de daxwaz ji şêvra Mafê Mirov kir ku bi sedema binpêkariyên eşkere ên peymannameyên navdewletî û binpêkirina sîstematîk a mafê mirovan di heyama 37 salên borî de, ji aliyê hikûmeta Îranê ve komîsyonek bo lêkolîn û nirxandina rewşa mafê mirovan li Îranê pêk bê.

Nûnerê Komeleya Mafê Mirovan a Kurdistanê-Jinêv yekemîn rêkxirtawa mafê mirovî ye, ku derheq binpêkirina mafê mirovan di Kurdistanê de, raporan pêşkêşî NY û reporterê taybet bi karûbarên mafê mirovan dide.

## Zêdeter ji 2 li ser 3 a nifûsa Çabiharê bê ava vexwarinê ne



**Serperestê fermandariya Çabiharê, Eyûb Derwêşî ragehandiye ku 400 gundên vê şaristanê bêy şebekeya ava vexwarinê ne.**

Wî ragehand ku bi riya tankeran, ava vexwarinê bi ser xelkê de tê parvekirin, û her rojê her yek ji akinciyên vê herêmê tenê 15 lîtr av ber wan dikeve.

Wî got ku ji 283 hezar kes ji xelkê şaristana Çabiharê %79 bê ava vexwarinê ne, û tenê %21 ji nifûsa gundên Çabiharê ava paqij ya vexwarinê hene.

Sîstan û Belûçistan di salên borî de, zêdetir ji navçeyên din ên Îranê, digel kêşe û kirîza hişiksalî û bêaviyê berbirû bûye.

Dewleta Rûhanî çar salan berî niha qewl dabû ku bi danîna 2.5 milyard Dolarî ji cihê sindûqa vegeşîna neteweyî, kirîza bêaviyê çareser bike, lê ew qewlê xwe cîbicî nekir. Di rojên derbazbûyî de, digel zêdebûna pileya germê di Sîstan û Belûçistanê de, nûnera û kesayetiyên mesebî daxwaza girîngîdana zêdetir bi vê navçeyê kirin. Li ser bingeha Saziya Bername û Bûdceyê, Sîstan û Belûçistan di warê pîvanên vegeşîna aborî û civakî yek ji parêzgehên herî bê par ên Îranê ye.

## UNISEF: Canê zêdetir ji 40 hezar zarokan di metirsiyê de ye



**UNISEF`ê roja Înê di Jinêvê de ragehand ku gellek zarok di metirsiyê de ne, û gellek ji wan jî, niha di encama şer de birîndar bûne.**

NY berî niha hin rapor belav kiribûn li ser êrîşa DAÎŞ`ê li dijî kesên ku Reqayê bi cî dihêlin. Di dema êrîşa HSD`ê li dijî DAÎŞ`ê bi sedan kesî ji xelkê vî bajarî di dema revê de ji aliyê DAÎŞ`ê ve hatine kuştin.

Di bajarê Reqe û derdora wê de, nêzî 200 hezar kesî dijîn, ku piraniya wan Erebên Sunî ne, û di nava wan de Mesîhî û Kud jî hene. Li ser bingeha amarên NY di Reqe de niha 160 hezar kes dijîn. Berî destpêkirina şer di Sûriyê de, nifûsa Reqe 300 hezar kes bû. Reqe ji meha Ut a sala 2014`an ve di destê DAÎŞê de ye, û wekî binkeya serekî ya xilafeta DAÎŞê tê hesibandin. HSD`ê niha êrîşeke berfireh li ser Reqe dest pê kiriye, û ketine nava kolaneke vî bajarî de, û niha şer û pevçûneke giran heye. Li ber van şer û pevçûnan, wekî bajarê Mûsilê, jiyana gellek zarokan di metirsiyê de ye, û dibin qurbaniyê şerekî, ku ne dest tê de hebûne û ne jî dikarin çarenûsa şer yekalî bikin. Lewra zarok di hemû şeran de qurbaniyê yekem in.

## Helbestvan Ferhadê Îçmo koça dawiyê kir



**Helbestvanê navdar ê Kurd Ferhadê Îçmo ku xelkê Rojavaya Kurdistanê bû, koça dawiyê kir.**

Navbirî piştî demeke dirêj berxwedana di hemberî nexweşiyê de, roja Pêncşemiyê 8ê Hezîranê wexera dawiyê kir, û xizmeta bi çand û helbesta Kurdî ji rêvîngîn vê rêbazç re cî hêla.

Helbestvan Ferhad Îbrahîmê Îçmo sala 1961ê li Qamişlo ji dayîk bûye, wî li Helebê xwendina xwe bi dawî aniye, û sala 1984an bûye Endazyar, destpêkê wî dest bi sazvaniyê kiriye (Tenbûr – Biziq - Ûd - û Gîtar). Gellek hunermendan helbestên wî strandin, mîna : Mihemed Şêxo - Beha Şêxo – Selah Osê – Adil Hiznî - Îmad Fettah - Îsmayîl Cimie .

Di dirêjahiya jiyana xwe de wî 8 dîwanên helbestan çap kirine, ku ji wan 2 dîwanên helbestan ên zarokan in.

Di 19ê meha Hizêrana 2016ê de wî berê xwe dabû Hewlêrê, û piştî neştegeriyê vegeriya Qamişlo, lê roj bi roj rewşa tenduristiya wî xirab dibû, û mixabin roja 8ê vê meha li bajarê Qamişlo koça dawî kir. Di xatirxwastina wî ya dawî de bi sedan heval û hezkiriyên helbestvanê Kurd beşdar bûn, û dane nîşandan ku helbestvan Ferhadê Içmo yek ji kesayetan e ku bandoreke mezin li ser çand, û helbesta Kurdî kiriye.

## Canda Dawûd: Tenê li Qamişlo aram dibim

**Stranbêja kurd a ji Rojavayê Kurdistanê Canda Dawûd, berevajiyê piraniya hunermendên Rojavayê Kurdistanê û Sûriyê, ligel destpêkirina şer û serhildanan ji cîh û warê bav û kalê xwe derrneket û li Qamişlo ma. Ew dibêje, derfetên wê gelek bûn da ku derkeve derveyî Kurdistanê lê bi nêrîna wê, ti dever mîna Qamişlo wê aram nakin. Lewma neçûye ti deran.**

**Canda Dawûd di hevpeyvînekê de ji Rûdawê re behsa tomarkirina yekemîn strana xwe kir û got, ku awaz û gotina yekemîn strana wê, yaw ê bixwe bûye û liser bîranîna 3 şervanên şehîd gotiye.**

**Gelek kesan Qamişlo bicîh hişt lê tu hê jî li wir î. Nêhiniya vê çi ye?**

Bi tevî ku ji bo dûrketina ji Rojava gelek derfetên min hebûn, bi tevê dijwariya şertên jiyanali Qamişloyê, lê ez piştrast im, ku ji bilî welatê xwe, li ti deveran aram nabim, dilxweş nabim. Lewma naxwazim ji Qamişlo herim.

**Te kengî dest bi gotina stanranan kir?**

Ji zarokatiya xwe ve stranan dibêjim. Malbata min hertim digotin dengê te xweş e. Lê piştî despêkirina şoreşê, 3 ciwanên ji malbata me şehîd bûn, ku şervanên Yekîneyên Parastina Gel bûn, min jî ji bo wan helbest nivîsand û strana wan çêkir. Ev jî bû yekemîn berhema min a tomarkirî.

**Dema malbata te got, dengê te xweş e, te jî hest bi wê yekê kir, ku dengê te xweş e?**

Malbata min hunerhez in. Bi giştî wan ez handam da ku herim nav cîhana hunerê. Bi taybetî birayê min ê mezin, bi awayekî berdewamî çavdêriya min dikir û ez dişopandim, ez handidam û ji min re digot, ku divê vê dengê nûwaze û xweş bi gel û nîştîman jî bidî guhdarkirin. Wê demê temenê min 10 sal bû lê van gotin û piştgiriyan we kir, hest bi xweşbûna dengê xwe bikim.

**Di karê hunerî de tu rastê ti astengan hatî?**

Ti astengiyeke mezin dernekete pêş min. ji ber ku malbata min li pişt min bûn. Herwiha baweriya min bi karê min hebû. Bi nêrîna min, hizir û nêrîna civakê ya li hember jinên hunermend heta astekî hatiye guhertin û giringî û nirx didin hunerê. Gelek malbat bixwe zarokên xwe han didin da ku karên hunerî bikin. Ev yek jî di saya şoreşê debû. Jiber ku şoreşê mejî û hizrên civakê vekir.

**Li Rojavayê Kurdistanê çawa piştgirî û alîkariya hunermendan tê kirin?**

Piştgirî û alîkarî zêdetir menewî ye, ne darayî ye. Ti rêxistin, sazî an jî dezgehek nîne kesên behredar himêz bike da ku bike hunermendeke rast. Hemû hunermend xwe bi xwe xwedîkirin û digihînin, bi xwe berhemên xwe belav dikin.

**Baş e, tu çawa stranan çêdikî, ti kes piştgiriya te dike?**

Ez berhemên xwe di carekê de weke albûm tomar nakim, stranan yek bi yek tomar dikim. Jiber ku lêçûn û mesrefa albûmam pir e û ti aliyek jî alîkarî nade min. Tenê malbata min alîkarî dide min û ez jî zêdetir kar dikim da ku stranên xwe tomar bikim.

**Bi nêrîna te huner bi siyasetê ve girêdayîye, bi taybet di rewşeke wiha yê hestyar a Rojava de?**

Hestekê pir xweş e dema mirov ji bo xak û nîştîman û qehremanên welatê xwe stranan bêje. Lê bi wî mercy ku nebî alîgirê aliyeke diyar, bêyî ciyawazî ji bo xak û nîştîman kar bikî.

**Di civaka me de hunermend dikare bê alî be?**

Belê dikare. Çendîn hunermend li Qamişlo hene, ku bê alî ne û ez jî yek ji wan im. Bi giştî li herêma me pirsgirêka demokrasiyê nîne û rêz li hemû nêrînên cuda re tê girtin.

**Bandora kîjan hunermendan liser te heye?**

Rihê wan şad be, Mihemed Şêxo, Seîd Yûsif, Tehsîn Taha û Eyaz



Zaxoyî bandor li min dikin.

Projeyên te yên hunerî ji bo pêşerojê çi ne?

Min 3 stran tomarkirine. Strana yekemîn bi navê “Şehîdên Me” ya duyemîn jî “Newroz” e. Peyv û avaza wan ya Deya Xedar bû. Herwiha navê berhemê min a sêyem “Duran” e û peyv û away ya min e.

**Xelkê Qamişlo mîna berî stranan guhdar dikin yan ji ber dijwariya jiyanê guh nadin?**

Belê, bêguman dijwarî û zehmetiyên jiyanê we kiriye, ku mirov mîna berî tamê ji hunerê negrin lê nîştîmanperwerî dihêle ku herdem stranan guhdar bikin.
Parve bike

## Zimanê Kurdî

### Hogir û Bager li kolanekê liqayî hev tên

Hogir: Silav, kekê Bager. Ev demeke dirêj e me hev nedîtiye. Tu çawa yî? Çi he ye, çi tine ye?

Bager: Saxiya canê te. Ji bo çend hefteyan çûbûm Mêrdînê.

Hogir: Gelekî baş e. Zarok çawa ne, dayika zarokan çawa ye?

Bager: Tev baş in. Zarok tên destê te. Dayika wan jî bi karê malê dadikeve.

Hogir: Xêr bû, tu ji bo çi çûbû Mêrdînê?

Bager: Ji bo kar çûm. Min li wir dest bi karekî nû kir.

Hogir : Karê nû çawa ye? Tu jê dilxweş î?

Bager: Karekî pir qenc e, lê dema min têrê nake. Niha jî divê xwe bigihînim cihekî ku hinek amadekarî bikim. Ji ber ku divê sibe dîsa vegerim Mêrdînê. Lê hefteyeke din ezê werim vir betlaneyê. Wê demê em dikarin li hev rûnên û li ser biaxivin.

Hogir: Ew ê pir baş bibe. Em dikarin bi hev re xwarinekê jî bixwin. Zarokan jî bi xwe re bîne û were cem me. Emê li bexçe rûnên , bila zarok ji xwe re bilîzin û emê jî him biaxivin û him goşt ji xwe re bibirêjin.

Bager: Ser çavan. Gava vegeriyam ezê te agahdar bikim. Niha bi xatirê te.

Hogir: Oxir be. Rêya te vekirî be.

### Du kes werin cem hev û gotûbêjeke bi vî awahî li pêş bixin.

Tu ji ku derê têyî?
Ji kengî ve we hev nedîtiye?
Rewşa karê te /wî/wê çawa ye?
Rewşa malbata te/wî/wê çawa ye?
Hûn dixwazin careke din hev bibînin?
Li ku û çawa hev bibînin?
Di dema xwarinê de, çi bixwin, çi bikin û li ser çi biaxivin?

..................................................................................................................................................
..........................................................................................
..................................................................................................................................................
..........................................................................................
..................................................................................................................................................
..........................................................................................
..................................................................................................................................................
..........................................................................................
..................................................................................................................................................
..........................................................................................




## Tiştonek



A: Mahir Berwarî

- 30 Qaz in, 50 Beraz in, 3 Tiktike ne, 10 Reşwêle ne.
(30 rojî, 50 reman, 3 rojka fela, 10 dehkêt eyda haciyane) * Dibit 40 roj reman û 3 rojiyên êzidiya bin.

- Barê gondura 30 bûn, her êkî 30 giheştinê.
- Yekit lêdekem, yekit le bin zikî ra dekem, yekit le bin kilkî ra dekem, dut pêwe dekem, dut lêwe dekem, duy dit be ser quzî da şûrr dekemewe, be hişkî têtdenêm, be terrî derîdênmewe. (* yek zîn, teng, palî, rikêb, rêşme û descele, kulingey paşkuy zîn, ligav)
- Yekî edem le ber birri, yekî edem le ber tirrî, duwanî pêda şûrr dekem, be wuşkî pêdadekem, be terrî derîdekem. (* bersînge, paru, awzeng, lixaw)

Minakek ji folklorê Elmanî:

Ziweibein saß auf Dreibein und aß ein Bein, da nahm Vierbein Zweibein ein Bein, da nahm Zweibein Dreibein und schmiß Vierbein, saß Vierbein ein Bein fallen ließ. (29) (* Mensch/mirov, Dristuhl/sêpê, Knuchen/hestî, Hund/se)
B. Bîrkariya xomalî /xweser: Çend pirsên hijmariyên narmal in, bersiv bi hijmar tê dan.

Têdîtin: Amadekar destkariya devoka metelokan nekiriye

**Xwendevanên hêja! Hûn dikarin bersiva tiştonekan bi riya E-Maila Agiri2003@gmal.com ji me re bişînin**

Agirî

- Rojnameya “Agirî” di van malperên jêrên de bixwînin:
- www.Kurdistanmedia.com
- www.Agirimedia.org
- rojnamaagiri@gmail.com
- www.facebook.com/Agirikirmanji

Navnîşana derveyî welat: AFKB.P. 102- 75623 ParisCEDEX 13 –FRANCE E - Mail: Agiri2003@gmail.com Hejmar (304)

# Çend wêneyên vekirina parka Pepûle ji bo zarokên di nav PDKÎ de













